

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**_Bultena agahdariyê N° 153 – ÇILE 2018_**
*Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882*
*www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. www.facebook.com/bureaukurde*

## ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

### *KANÛN 2017*

**KONFÊRANS**

***17. 12. 2017: Dîroka nuh a Kurdistanê***



**Pervîn Cemîl**, seroka Buroya Kurdî, konfêransek bi navê "Dîroka nuh a Kurdistanê" kir. Wê bi kurtî naveroka pirtûka dîrokê ya Qedrî Cemîl Paşa, pismamê bavê wê, Ekrem, a bi navê "Doza Kurdistan" û bi binnivîsa "Bîranînên 60 salên têkoşîna gelê kurd ji bo rizgarbûna ji bindestiyê", got.

Ev pirtûk di 1969 de bi tirkî, li Şamê hati bû nivîsîn û li Beyrûtê hati bû çap kirin. Di pêşgotinê de, ew li ser karaktêrê Kurdan dipeyive û dibêje ku ew dêmokrat in û gelek ji azadiyê hez dikin û ku jina kurde serê xwe nagire, tevî civata zilaman dibe û bi wan re dîlan û şerr dike.

Piştre, nivîskar li ser nijadkujiya (qetliam) Ermeniyan dipeyive. Ew tawanbarkirina Kurdan ku wan ev nijadkujî kir red dike û pirtûka Murgan (Morgan ?), nimînendeyê (temsîlcî) wezareta fransî ya perwerdeyê li Îranê, ku di 1917 de, bi sernivîsa "Lêkolînek li ser Gelan", nivîsî bû, dibêje: *"Di dema nijadkujiya Ermeniyan de, ku di 1914-1918 de ji aliyê Tirkiyê hati bû kirin, Kurdan 60.000 jin, zilam û zarok kutah (xelas) kirin"*. Û ew li ser nivîskarê asûrî, Yûsuf Melek jî dipeyive û dibêje ku wî li ser vê babetê weha goti bû: *"Kurd alîkariya hindikayiyên qels dikin û wan diparêzin"*.

Di destpêkê de, Qedrî li ser zarokiya xwe li Diyarbekirê, li Kurdistana Tirkiyê, û piştre li ser cuhanî û çalakiyên xwe yên ramyariyî (siyasî) li Istanbulê (rêxistina Hoybûnê û Kürt Terakki ve Teavün Cemiyeti dipeyive. Eva dawîn rojnameyek bi navê "Kurdistan" derdixist û li Lozanê, li Swîsra, belav dikir. Piştre, ew li ser serhildanên kurdî yên sedsala 20mîn, li Kurdistana Iraq, Îran û Tirkiyê dinivîse. Lê li ser rewşa Kurdên Sûriyê napeyive. Pervîn dibêje ku

sedema vê yekê ew bû ku ew li wê derê, tevî endamên din ên malbatê, di sirgûnê de dijiya û ditirsiya ku ji aliyê rejîma partiya Baas (Hafiz El-Esed, bavê serokê nuha Beşşar El-Esde) were girtin.



Li dawiya pirtûkê, Qedrî bangî ronakbîrên kurd dike ku xwendin û nivîsîna bi kurdî hînî zarokên xwe bikin û xizmeta gelê kurd, li ser bingeheke dêmokratîk, bikin. Û ew rêzayê (ma'na) cêjna Sersala Kurdî, Newroz, û ola kevnar a Kurdan, Zerdeştiyî, ku li ser bingeha du xwedêyan (dualisme) (têkoşîna Qenciyê li dijî Xerabiyê) ava bûye, jî şirove dike.

**Serhildanên ku Qedrî dibêje:**

**Kurdistana Iraqê:** 1917, 1919, 1922, 1924, 1930, Pakta Bexdadê di 1955 de.
**Kurdistana Îranê:** 1920, 1946 (di 1946 de, Qedrî çû Mahabadê, paytexta Kurdistana Îranê, weka şandê rêxistina Hoybûnê ya ku me li jor got).

**Kurdistana Tirkiyê:** 1920, 1922, 1925, 1927, 1936.

Li ser serhildana 1936, a Seyyid Riza li Dersîmê (bi tirkî: Tünceli), Qedrî weha dibêje: *"Bi hezaran zarok û jin xwe di nav şkeftan de veşart. Serbazan (esker) devên van şkeftan girtin û sîwax kirin. Ev zarok û jin tê de fetisîn. Gelek jin û keçên cuhan, ji bo ku nekevin nav destên serbazên tirk, xwe ji zinaran avêt"*.

## BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***24. 12. 2017: Konsêrek ji bo qurbanên Kurdistana Îranê***

Rêxistina kurdî ya çandî "Zagros" konsêrek li pirtûkxaneya Harelbeke, ji bo alîkariya qurbanên erdheja mezzin ku di 12. 11. 2017 de li Kurdistana Îranê bû û ku tê de bi hezaran kes bûn qurban (li bultena me ya berê, N° 152, binêre), pêk anî. Her du komen muzîkê, Kabûk û Nûjîn, tê de lîzt.

# ENCAMA ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ DI 2017 DE

***1. Çalakiyên rojane***

**- Wergerandin û alîkariya civakî,** ji bo Kurd, Îranî û Efxaniyan, bi hevkariya rêxistina Bruxelles-Acceuil (Brussel-Onthaal). **Zaralî Nikraweş**, ji Kurdistana Îranê, **224 caran** wergerand.

**- Fêrên zimanên fransî û hollandî.**

**- Pirtûkxane û mêdyatêk, bi nêzîkî deh zimanan.**

**- Sekretarya, facebook, nivîsîn û wergerandina bultena mehane ya agahdariyê bi 4 zimanan.**

***2- Çalakiyên mehane : 22***

**a) Bultena agahdariyê:** 12 hejmar, N° 141-152, bi 4 zimanan: Kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî. Bi e.mail ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re tê şandin.

**b) Konfêrans** li ser dîrok, çand û rojeva kurdî, û li ser koçbûna li Beljîka: 10

***3. Beşdarbûna çalakiyên rêxistinên din: 23***

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê DE

***Amed (Diyarbekir)***
***Di 28 mijdar 2017 de***, leşkerê tirkî tevger li dijî PKKê, li bajarokên Herzo, Farqîn û Pasûrê, kirin. Li Pasûrê, pevçûn bûn. 3 PKK hatin kuştin û gelek çek û teqemnî hatin stendin.

***Di 08 Kanûn de***, demjimêr 5 ê serê sibê, hatûçûn li 52 gundên 5 bajarokên Amedê hat qedexe kirin.

***Di 10 Kanûn de***, ev qedexekirina hatûçûnê hat rakirin.

***Di 15 Kanûn de***, li bajarokê Bağlarê, hêzên ewlehiyê yên tirkî 7 kes, ku bi alîkirina PKKê hatin tawanbar kirin, bin çav kirin.
*(rudaw.net, 01,08,10 û 15.12.2017)*

***Dersîm (Tünceli)***
Parêzgarê Dersîmê 30 bajarokên Dersîmê weka "navçeyên taybetî yên ewlehiyê", ***ji 02 heta 16 Kanûn***, daxuyandin. Hatûçûna bê destûr tê de hat qedexe kirin. Piştre, ev qedexekirin ***heta 15. 01. 2018*** hat dirêj kirin.
*(rudaw.net, 01.12.2017)*

***Colemêrg (Hakkari) û Sêrt (Siirt)***
Leşkerê tirkî li bajarokê Şemzînanê, û li yê Dihê, ku girêdayî Sêrtê ye, şerrê PKKê kir û gelek çek û teqemenî stendin.
*(rudaw.net, 02.12.2017)*

***Çewlig (Bingöl)***
Pevçûn li gunde Çatakê bûn. 5 PKK hatin kuştin.
*(rudaw.net, 03.12.2017)*

***Mardîn***
***Di 10 Kanûn de***, qedexekirina hatûçûnê li bajarokên Kerboran û Nuseybînê hat daxuyandin.
*(rudaw.net, 10.12.2017)*

***Şirnex***
Di dema çavdêriyeke (kontrol) leşkerî li ser riya bajarokê Akçayê de, mînek teqiya. Serbazek (esker) bi giranî birîndar bû. Tevgereke mezzin li vê navçeyê dest pê kir.
*(rudaw.net, 11.12.2017)*

***Izmir***
Li bajarê tirkî yê Izmirê, 51 kes, bi tawana propagandakirina PKKê, hatin ragirtin. Ev yek di çarçeveya vekolîneke dozkarê komarî (procureur) yê vî bajarî de.
*(rudaw.net, 19.12.2017)*

***Kurdistana Iraqê***
***Di 26 Kanûn de***, firokeyên tirkî nêzîkî demjimêrekê navçeya Amedî, li nêzîkî bajarê Duhokê, li Kurdistana Iraqê, bombe kir.

***Di 28 Kanûn de***, kampên PKKê li Avaşîn, Basyan û Refahiyê hatin bombe kirin. 11 PKK hatin kuştin.

Ji bo lidûketina PKKê, firokeyên tirkî gelek caran navçeyên Amedî, Akrê, Zaxo, Hewlêr û Suleymaniyê, yên Kurdistana Iraqê, bombe dikin.
*(rudaw.net, 26 û 28.12.2017)*

### 1.187 BINÇAVKIRIN LI 81 BAJARAN
***Di 29 Kanûn 2017 de***, bi hinceta nêzîkbûna sala nuh, 89.000 polîs û jandarm li 81 bajarên Kurdistan û Tirkiyê belav bûn. 1.187 kes hatin bin çav kirin. Bi ser de jî, gelek kargeh û firoşgeh hatin girtin.

## DOZ LI DIJÎ AKADÊMÎKAN

***Di 05 Kanûn 2017 de***, dozek li dijî akadêmîkên zanîngeha Istanbulê dest pê kir. Di 11 Çile 2016 de, wan daxuyaniyeke ku tê de nerazîbûna xwe ji tevgerên leşkerî li Kurdistanê ravekiri bû weşandi bû: *"Ez nabin şirîkê vê tawanê"*. 1.200 mamoste ew wajo (imza) kiri bû. Ewê dozên akadêmîkên din jî bajon (dewam bikin).

## QEDEXEYA XWEPÊŞANDANAN LI ANKARA



Partiya kurdî HDP (Partiya Dêmokratîk a Gelan) destûra xwepêşandanekê li ber dadgeha Ankara, ji bo riswakirina (protêsto) dozên berpirsiyarên xwe, Selahettin Demirtaş, Figen Yükgsekdağ û Idris Baluken, ku ewê di 06.12.2017 de dest pê bikin, xwest. Lê ew ji aliyê parêzgar (walî) ne hat pejirandin.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

## QEDEXEYA FÎLMEKE BELGEYÎ

Polîsê tirkî nîşandana fîlma belgeyî ya bi navê "Sur: Erd û Niştiman" (Sur şaredariyeke Amedê ye), ya fîlmçêker Zana Kibar, qedexe kir.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

## QEDEXEYA ÇALAKIYAN LI WANÊ

Parêzgarê Wanê ji rêxistinên civakî re kirina çalakiyên ne fermî qedexe kir. Ev yek ji bo sedemên ewlehiyê.
*(rudaw.net, 30.12.2017)*

## DIVÊ KU DEMIRTAŞ LI ZÎNDANÊ BIMÎNE

***Di 07 Kanûn de***, piştî 13 meh girtin, doza hev-serokê partiya kurdî HDP, Selahettin Demirtaş, bû. Dadgeha cezayên giran a Ankara biryar stend ku wî azad neke. Demirtaş ne pejirand (qebûl ne kir) ku beşdarî doza xwe bibe û xwest ku ji hucreya xwe ya zîndanê, bi sîstema SEGBIS xwe biparêze. Ew bi belavkirina kîn û dijminayiyê, di mîtînga xwe ya 06 Hezîran 2015 de, hat tawanbar kirin. Piştre, ew bêsûc hat daxuyandin, lê bi sûcên din hat tawanbar kirin. Doza wî hat paş de xistin 14 Sibat 2018. Heta wê demê, ewê li zîndanê bimîne. 250 parêzer (avukat) piştgiriya wî dikin û wî diparêzin. Şandên ewropî û bi hezaran Kurd li ber dadgehê xwe pêşan da.
*(Rudaw.net, 08.12.2017)*

## GOTINA "KURDISTAN" LI PARLEMENTÊ




Di dema giftûgoyekê li ser buceyê, li Parlementa Tirkiyê, de, parlementê Rihayê (Urfa), Osman Baydemir, ê partiya HDP, got : *"Ez weka parlementerekî Kurdistanê hatime û daxwaziya min ew e ku ev cî bibe banekî hevbeş ê Tirkan û Kurdan"*. Parlementerên partiya tirkî ya desthilatê, AKP, li dijî vê yekê derketin. Cîgira serokê vê parlementê, Ayşenur Bahçekapılı, jê pirsî: *"Kurdistan li ku ye?"*. Baydemir destê xwe danî ser dilê xwe û got : *"Kurdistan li vira ye"*. Wê bi tundî bersîva wî da: *"Tu ne parlementerekî Kurdistanê î, tu parlementerê Riha î"*.

Li gora yasayên (qanûn) tirkî, hîn jî bikaranîna gotina "Kurdistan" qedexe ye. Û berpirsiyarên hukûmet û parlementê mafê wan nîn e ku wê bi lêv bikin. Ew bi gotinên "Rojhilat" û "Başûrê Rojhilat" wê nîşan didin.
*(rudaw.net, 13.12.2017)*

**AVAHÎ LI AMEDÊ TÊN HILWEŞANDIN**
Bi biryara wezîrê tirk ê hawîrdorê, avahiyên taxa Girê Çilan (Kırklardağı), ya Amedî (Diyarbekir), ku ji 6 salan bêtir e hene û ku 725 apartmanên wan hene, divê ku werin hilweşandin. Rûniştevanên wan dibêjin ku ev heyfhildaneke hukûmeta tirkî li dijî partiya kurdî HDP ye. Ev biryar di 11 Tebax 2017 de hati bû stendin. Ev tax li hemberî dîwarê dîrokî yê Amedê û bexçeyên Hewselê, ku di 2015 de ji aliyê UNESCO weka mîrata mirovahiyê hati bûn nas kirin, e.
*(rudaw.net, 30.12.2017)*

# KURDISTANA IRAQÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

### ŞINGAL

***Dîtina goristanekê***
Berê 4 mehan, ava bendava Mûsilê kêm bû bû. Goristaneke ku tê de 500 gorên Kurdên êzdî hene û çend ciyên hecê (seredanên olî) xuya bûn. Ev bendav ji aliyê Saddam Huseyn, berê 32 salan, hati bû ava kirin. 83 gundên Kurdên êzdî keti bûn bin wê.
*(rudaw.net, 01.12.2017)*

***PKK li Şingalê***
Berpirsiyarê Hêzên Parastina Êzdîxanê, Heyder Şeşo, daxuyand ku wezareta Pêşmerge, ya Kurdistana Iraqê, hevkariya xwe bi vê hêzê re rawestand û ku PKK hat Şingalê, lê ku ev hêza êzdî ne amade ye ku jê derkeve.

Şeşo got jî ku PKK berê 10 rojan hat Şingalê û ku pêwendiyên wê bi mîlîsên şîî yên iraqî yên Heşdî Şe'bî re gelek baş in.

Sekreterê giştî yê wezareta Pêşmerge, Cebbar Yawer, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku vê wezaretê ji vê Hêza Êzîdxanê xwesti bû ku biçe ciyekî din, lê ku eva dawîn guhdariya wê ne kir û ku ji sedema vê yekê wezaretê hevkariya xwe pê re rawestand.
*(rudaw.net, 02.12.2017)*

***Xwepêşandan li dijî 2 parlementeran***
***Di 13 Kanûn 2017 de***, Kurdên êzdî yên Şingalê li dijî hatina 2 parlementerên sunnî ji Mûsilê xwe pêşan da û ew bi revandina keç û jinên êzdî tawanbar kirin. Van parlementeran dixwest ku ji riya Şingalê derbas bibin, ji bo ku biçin Beacê, li nêzîkî Mûsilê.
*(rudaw.net, 14.12.2017)*

***Ji 30.000 mîlîsên şîî bêtir hatin kuştin û birîndar kirin***
Sekreterê giştî yê koma "Esayib Ehlê Heq", Qeys Xezalî, daxuyand ku di şerrê li dijî Dewleta Islamî de, 7.637 şervanên mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî hatin kuştin û 21.300 jî birîndar bûn. Ev kom bi hevkariya xwe bi Îranê re naskirî ye. Kursiyekî wê li parlementa iraqî heye. Û ew bi dijîtiya xwe ji Herêma Kurdistanê re jî naskirî ye.
*(rudaw.net, 14.12.2017)*

***17 Kurdên êzdî tên rizgar kirin***
Berpirsiyarê buroya taybetî ya Duhokê, ku bi Kurdên êzdî yên revandî xerîk (mijûl) dibe, Huseyn Koro, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku di 24 demjiêrên dawîn de, 11 Kurdên êzdî, ku ji wan 7 jin û 4 zarok, ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin. Û wî got jî ku 5 ji wan li Tirkiyê û 6 jî li Sûriyê hatin rizgar kirin û ku hemî ji rûniştevanên Şingal û derdora wê ne.

Çend roj şûn de, 6 zarokên din ên Şingalê, ku ji wan 5 keç, ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin. 2 ji van zarokên ku ji Tirkiyê hati bûn vegerandin zimanê xwe yê dayikî, yê kurdî, ji bîr kiriye û bitenê bi tirkî dipeyivin. Yek ji wan 7 salî û yek jî 10 salî ye. Li vî welatî, hîn 10 zarokên din jî hene.

Koro got ku heta nuha, ji 6.417 Kurdên êzdî ku di 2014 de hati bûn revandin, 3.223 hatin rizgar kirin.
*(rudaw.net, 15,22,30 û 31.12.2017)*

***Şewat li kampa Zaxo***
***Di 23 Kanûn de***, şewatek di nav 22 konên penaberên Şingalê yên li Zaxo de bû. Tu qurban ne bûn, lê belgeyên fermî û kelepûrên wan şewitîn.

Li vê kampê, 2.500 kon, ku ji wan 400 ên rûniştevanên misilman ên Şingalê ne, hene. Konên evên dawîn jî şewitîn.
*(rudaw.net, 23.12.2017)*

***Seredana UNAMI***
Şandeke Neteweyên Yekbûyî li Iraqê "UNAMI" çû Şingalê. Muxtarê Şingalê, Mehma Xelîl, jê re got ku pêwîstiya vê navçeyê bi parastinê heye û jê xwest ku ji aliyê encumeneke hevbeş a hukûmetên iraqî û kurdî were bi rê ve birin û ku vekolîneke lezgîn li ser bûyerên Şingalê were kirin. Wî got jî ku siyaseteke erebkirinê li Şingalê dest pê kiriye û ku ew ji ya hukûmeta partiya Baas (Saddam Huseyn) xerabtir e.

Birêvebirê giştî yê karên Êzdiyan li wezareta karên olî ya Kurdistanê, Xeyrî Bozanî, got ku heta nuha çarenivîsa 3.200 Êzdiyan ne diyar e.

Piştî rizgarkirina Şingalê ji Dewleta Islamî ji aliyê Pêşmerge, gelek ji rûniştevanên wê vegeriyan malên xwe. Lê dema ku mîlîsên şîî û leşkerê iraqî hatin, ew ji nuh de jê derketin.
*(rudaw.net, 15.12.2017)*

## ENIYA MEXMÛR-GWÊRÊ

***5 Islamî tên kuştin***
***Di 19 Kanûn 2017 de***, fermandarê eniya Mexûr-Gwêrê, Sîrwan Berzanî, daxuyand ku nêzîkî 25 şervanên Dewleta Islamî êrîşî Pêşmerge, li çiyayê Qerecoxê, kir. 5 ji wan ji aliyê Pêşmerge hatin kuştin.

Di 17.10.2017 de, mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û leşkerê iraqî êrîşî Mexmûrê kiri bû. Pêşmergeyên ku li wê derê bûn xwe jê kişand. Ji wê gavê de, ev cara yekemîn e ku Dewleta Islamî êrîşî vê navçeyê dike.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 19.12.2017)*

## MÛSIL

***Ji 11.000 sîvîlan bêtir hatin kuştin***
Ajansên navneteweyî yên cihê daxuyand ku di şerrê 10 mehan de, yê di navbera hêzên iraqî û Dewleta Islamî li Mûsilê de, ji 11.000 sîvîl bêtir hatin kuştin.

Tevgera rizgarkirina Mûsilê di 17.10.2016 de dest pê kiri bû. Ew ji aliyê hêzên Pêşmerge û leşkerê iraqî hati bû kirin û ji aliyê Hevbendiya Navneteweyî hati bû piştgirî kirin. Piştre, mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî jî beşdarî wê bûn. Ew di 10. 07. 2017 de kutah (xelas) bû.

Dema ku Dewleta Islamî ket nav Mûsilê, destê xwe danî ser enbarên çekkan, ên leşkerê iraqî.
*(rudaw.net, 21.02.2017)*

## KERKÛK

***DAIŞ xwe li çiyan vedişêre***
Efserekî (zabit) bilind ê polîsê iraqî, Fazil Seb'awî, daxuyand ku "hucreyên razayî" yên Dewleta Islamî zêde bûne û ku bi sedan ji şervanên wê xwe li zincîrên çiyayê Hemrînê, ku di navbera parêzgehên Kerkûk, Selaheddîn û Diyala de ne, vedişêrin.

Di Kanûn 2017 de, şervanên Dewleta Islamî feramndarekî bilind ê polîsê iraqî, Fazil Sebawî, 5 ji hevkarên wî û serokê êla (eşîr) Cihêşhatê, jina wî û kurrê wî, kuştin. Nuha, bajarê Kerkûkê ji aliyê Hêzên Iraqî yên li Dijî Têrrorê, polîsên cihî (mehellî), leşker û polîsê fêdêral, yên iraqî tê parastin.

Carna, şervanên Dewleta Islamî êrîşên xwekuj li dora Kerkûkê dikin û riya rûniştevanan û hêzên ewlehiyê digirin. Ew di nav 18 km li Başûr û Rojavaya Kerkûkê de dilivin.

Piştî êrîşên Dewleta Islamî di Hezîran 2014 de, leşkerê iraqî xwe ji van navçeyan kişand û Pêşmerge ketin van wan, ji bo ku valayiyek nebe.

*(rudaw.net, 27.12.2017)*

## XANEQÎN

***Şerr di navbera DAIŞ û leşkerê iraqî de***
Piştî kuştina rûniştevanekî gundê Tarîpetê, yê bajarokê Qeretepê, ji aliyê şervanên Dewleta Islamî, demjimêrek (saetek) pevçûn li dijî wan ji aliyê leşkerê iraqî derket.

Eger hukûmeta iraqî bidawîbûna Dewleta Islamî daxuyandibe jî, komên piçûk li hin ciyan, nemaze li sînorên gundên nêzîkî çiyayê Hemrînê û deştên Tibzê, hene.
*(rudaw.net, 28.12.2017)*

## RAHÊNANA 500 PÊŞMERGE KUTAH BÛ

Rahênana (tedrîb) 500 Pêşmergeyan ji aliyê hêzên Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta Islamî li Hewlêrê kutah bû (qediya).

Di 3 salên dawîn de, vê Hevbendiyê rahênana nêzîkî 15.000 efser (zabit) û serbazên (esker) kurd "Pêşmerge" kiri bû.

## ÊRÎŞÊN LEŞKERÊ IRAQÎ Û MÎLÎSÊN ŞÎÎ

## KERKÛK

***Bicîkirina Ereban***
Fermandarê Pêşmerge li Kerkûkê, Kemal Kerkûkî, daxuyand ku hukûmeta iraqî kampanyeke erebkirina vê navçeyê dike. Wî got ku ji hefteyekê de, 1.413 malbatên ereb ji navend û başûrê Iraqê hatin anîn Kerkûkê û çekdar kirin. Û wî got jî ku serbazên (esker) iraqî bi şev dikevin nav malên Kurdan, cuhanan radigirin û êşkence dikin, û ku çarenivîsa hin ji wan ne diyar e (Kerkûk û Mûsil du navçeyên kurdî ne, lê ew li derveyî desthilata hukûmeta Kurdistanê ne. Buroya Kurdî).
*(rudaw.net, 03.12.2017)*

***Êrîş***
***Di 06 Kanûn de***, bi şev, kesên nenas êrîşî hêzên iraqî yên antî-têrrorîst, li nêzîkî buroya partiya kommunîst, kir. Pevçûn 45 xulek (deqqe) ajot (dewam kir). Tukes ne hat kuştin.

Di 16. 10. 2017 de, leşkerê iraqî û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî êrîşî Kerkûkê û navçeyên din ên Kurdistanê kiri bû. Ji wê gavê de, çend caran, kes û hêzên nenas tê de êrîşî leşkerê iraqî kir.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

***Tirkmen tên êrîş kirin***
***Di 16 Kanûn de***, bi şev, komeke çekdar a nenas li Kerkûkê êrîşî buroya Bereya Tirkmenî û dêpoyeke çekkên mîlîsên Heşdî Tirkmenî kir.
*(rudaw.net, 17.12.2017)*

## XURMATÛ

***Nijadkujî li dijî Kurdan***
***Di 06 Kanûn de***, encumena mafên mirov a Parlementa Kurdistanê civiya. Serokê wê, Soran Umer, tê de got ku di 15 û 16 Cotmehê de, mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û leşkerê iraqî li hemberî rûniştevanên kurd ên Xurmatû nijadkujiyek (qetliam) kir, ku gelek fotoyên van tawanan (cinayet) hatin stendin û ku ewê li dû vê dozê were çûn. Ev foto ji konsulên welatên biyanî, ku li Kurdistanê ne, hatin nîşan dan. 4 encumenên parlementerî yên vekolînê (ankêt) hatin ava kirin.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

***Xurmatû tê bombe kirin***
***Di 09 Kanûn de***, navenda Xurmatû ji aliyê kesên nenas hat bombe kirin. 2 mîlîsên şîî bi sivikî birîndar bûn. Van mîlîsan, bi bombekirina çiyayê Hencîrê, bersîv da.

Xurmatû 77 km li Başûrê Kerkûkê ye û girêdayî parêzgeha Selaheddînê ye.
*(rudaw.net, 09.12.2017)*

***Di 12 Kanûn de***, hêlîkoptêrên leşkerê iraqî gundên Zenane û Dawûdê, ku di nav destên şervanên wan ên kurd, ku endamên hin malbatên penaber in, de ne bombe kirin.

Bajarokê Xurmatû girêdayî parêzgeha iraqî ya Selahdeddînê ye. Berê hatina mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî, jimara rûniştevanên wî digihajt 220.000, ku ji wan 55% Kurd, 30% Tirkmen û 15% Ereb bûn.
*(rudaw.net, 12.12.2017)*

**MEXMÛR**

***Teqîn li kampeke penaberan***
***Di 06 Kanûn de***, demjimêr 18.45, teqînek li kampa penaberên Mexmûrê, ku piraniya rûniştevanên we Kurd in, bû. 3 kes hatin kuştin û 7 birîndar bûn. Ev kamp 60 km li Başûrê Hewlêrê ye û di salên 1990 de hati bû ava kirin. 12.500 Kurdên Tirkiyê tê de dijîn.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

**GERMIYAN**

***Bombekirin***
Leşkerê iraqî û mîlîsên şîi bajarokê Newcûlê, yê girêdayî Germiyanê, bombe kir. Bi dehan malbatên kurd jê çûn.

***Di 12 Kanûn de***, leşkerê iraqî û mîlîsên şîî 2 demjimêran gundên Qela û Çemê bombe kirin.
*(Rudaw.net, 13.12.2017)*

**ROJA ALA KURDÎ**
***17 Kanûn*** roja ala kurdî ye. Ew li hemî bajarên Kurdistanê tê pîroz kirin. Li Suleymaniyê, wezîrê perwerdeyê, Piştîwan Sadî, beşdar bû merasîmekê li dibistana Firîşte, ku beşek ji xwendekarên wê Ereb in.

Roja Ala Kurdî di 19 Hezîran 2004 de, bi biryar N° 48 a Parlementa Kurdistanê, hat daxuyandin (îlan kirin).
*(rudaw.net, 18.12.2017)*

**XWEPÊŞANDAN**
***Di 19 Kanûn de***, xwepêşandan li bajarên Halabca û Suleymaniyê, û li bajarokên Kifrî, Ranya, Penciwîn û Koyê, bûn.

Xwepêşanderan nerazîbûna xwe ji derengbûna dayîna mûçeyan (meaş) û kêmbûna xizmetan nîşan da.

Li Koyê, xwepêşander buroyên muxtar û partiyên kurdî : Goran, Yekgirtû Islamî, Komela Islamî û PDK (Partî Dêmokratî Kurdistan), şewitandin. Û wan tecrube kir ku buroya YNK (Yekîtî Niştimanî Kurdistan) jî bişewitînin, lê polîs ew ne hiştin. Pevçûn bi polîs re bûn û çend kes birîndar bûn.
Li Ranya, 5 xwepêşander hatin kuştin.

Piştî civîna encumena wezîrên Kurdistanê, serokwezîr Nêçîrvan Berzanî li konfêranseke çapemeniyê got ku xwepêşandan li herderê cihanê mafekî rewa ye, lê ku şewitandina avahiyan qedexe ye. Wî sersaxiyê ji malbatên qurbanan re pêşkêş kir û got ku destekî xerab li paş van têkdanan e.

Berzanî got jî ku piştî êrîşên Dewleta Islamî, nîvê hatinên Kurdistanê kêm bû. Loma, parlementa Kurdistanê biryar stend ku encumeneke hevbeş ava bike, ji bo çaksaziyan (reform) pêk bîne, û dibe ku hilbijartinên zûtir werin pêk anîn.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 19,20 û 21.12.2017)*

**2 PARTÎ XWE JI HUKÛMETÊ DIKIŞÎNIN**
Piştî van xwepêşandanan, du partiyên hukûmeta Kurdistanê, Tevgera Goran û Komela Islamî 2 wezîrên xwe jê kişandin. 4 wezîrên Goran û serokatiya parlementê, û 2 partiyên islamî, hebûn.
*(rudaw.net, 20.12.2017)*

**SEREDANÊN DERVE**

***FRANSA***



***Rasthatina Berzanî-Macron***
***Di 02 Kanûn 2017 de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, tevî şandekê çû seredana serokê fransî Emmanuel Macron, li Saraya Elysée, li Parîsê. Piştre, wan konfêranseke çapemeniyê pêk anî. Bi Berzanî re cîgirê wî Qubad Talabanî, serokê kabîneya serokatiya Kurdistanê, Fuad Huseyn, û berdevkê hukûmeta Kurdistanê, Seffîn Dizeyî, hebûn.

Li konfêransa çapemeniyê, Macron bangî Hewlêr û Bexdadê kir ku dyalogeke lezgîn bikin û got ku divê ku aşîtî zû vegere û mafên Kurdan, di çarçeveya destûra iraqî de, werin parastin.
*(rudaw.net, 02.12.2017)*

***Bersîva hukûmeta iraqî ji Macron re***
Berdevkê buroya serokwezîrê iraqî, Saed Hedîsî, daxuyand ku zoriyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de pirseke hundirî ya iraqî ne û ku divê ku ew bi dyalogê werin çare kirin. Û wî got jî ku hemî ev pirs (problêm) ji sedema giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê derketin.
*(rudaw.net, 03.12.2017)*

***ALMANYA***



***Berzanî-Merkel***
***Di 18 Kanûn de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, tevî cîgirê xwe, Qubad Talabanî, û serokê kabîneya xwe, Fuad Huseyn, çû Berlînê û rastî serokwezîra alman Angela Merkel hat. Wê jê re piştgiriya welatê xwe ji mafên destûrî yên Herêma Kurdistanê re, di çarçeveya Iraqê de, û alîkariya xwe ji bo têkoşîna li dijî têrrorîsmê dilniya (te'kîd) kirin. Berzani jê re got ku Herêma Kurdistanê pabendî (girêdayî) destûra iraqî ye û ku wê ji hukûmeta Bexdadê dyalog xwest, lê ku vê hukûmetê bersîva wê ne da. Loma Kurdistan, di vî warî de, alîkariya welatên heval, weka Almanya, dixwaze.
*(rudaw.net, 18.12.2017)*

***TIRKIYE***

***Şandeke kurdî-erebî***
Şandeke hevbeş, a hukûmetên Kurdistan û Iraqê, çû seredana Ankarê û rastî berpirsiyarên tirk hat. Serokê şanda kurdî, Muhammed Emîn Faris, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ev civînên di navbera hukûmetên Tirkiye û Iraqê de bi awakî rêkûpêk (muntazam) tên kirin û ku hukûmeta Kurdistanê beşdarî wan dibe. Û wî got jî ku ew gelek girîng in û li ser avakirina bendavan in.
*(rudaw.net, 27.12.2017)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***ALMANYA***

***Balyoz***
***Di 11 Kanûn de***, rawêjkarê (muşawir) ewlehiya Kurdistanê, Mesrûr Berzanî, pêşwaziya balyozê (sefîr) Almanya li Iraqê, Cyrill Nunn, kir. Wan pêşveçûnên dawîn û pirsên di navbera Hewlêr û Bexdadê de giftûgo kirin. Balyoz hêviya xwe ku dyalogek di navbera her du aliyan de, li ser bingeha destûra iraqî, bibe ravekir (got) û wî got jî ku welatê wî piştgiriya Kurdistaneke xurt û pêşketî, di çarçeveya Iraqê de, dike.

Berzanî got ku hukûmeta iraqî dev ji bertekên (réactions) xwe yên leşkerî ne daye û ku ev ji bo navçeyê metirî (tehlike) ye. Wî got jî ku Herêma Kurdistanê hêvî dike ku tavil (pirr zû) giftûgo bi Bexdadê re bibin û ku ew dorpêça li ser Kurdistanê rake.
*(rudaw.net, 11.12.2017)*

***ÎTALYA***

***Balyoz û konsul***
Serokwezîrê kurd, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya balyozê îtalî yê nuh li Iraqê, Brono Antonio Baskino, û konsula îtalî li Kurdistanê, Serena Moroni, kir. Wan rewşa nuha li Kurdistan û Iraqê giftûgo kir. Balyoz hêvî kir ku pêwendiyên di navbera Îtalya û Kurdistanê de xurttir bibin, got ku ew ji bo her alîkariyekê amade ye û rûmeta (hurmet) xwe ji Pêşmerge û gelê Kurdistanê, ku li gel hemî zoriyên mezzin pêşketina xwe dajon, re ravekir (got).
*(rudaw.net, 13.12.2017)*

***ÇÊKYA***

***Balyoz û konsul***
***Di 14 Kanûn de***, balyozê Çêkya li Iraqê, Jan Vycital, û konsula vî welatî li Kurdistanê, Eva Drdakova, çûn seredana serokwezîrê kurd,

Nêçîrvan Berzanî. Balyoz agahdariyên kurt li ser çalakiyên wan li Iraq û Kurdistanê, û li ser alîkariya wan a mirovî ji penaberan re, dan. Û wî pirs li ser pêwendiyên di navbera Hewlêr û Bexdadê de pirsîn û got ku ewê biçin seredana kampên penaberan.

Çêkya alîkariya Pêşmerge, di çarçeveya Hevbendiya Navneteweyî li Dijî Dewleta Islamî de, kir û pêwendiyên wê yên xurt, di warê abor û çandinê de, nemaze piştî wajokirina (imza) lihevkirineke 3 xalan di Gulan 2017 de, bi Kurdistanê re hene.
*(rudaw.net, 14.12.2017)*

***YASANASÊN NAVNETEWEYÎ***

***Di 14 Kanûn 2017 de***, şandeke Yekîtiya Navneteweyî ya Yasanasan (huqûqnas, juristes), ku buroya wê li Parîsê ye, gihajt Kurdistanê ji bo ku vekolînekê (ankêt) li ser pelixandina mafên mirov li Kerkûk û Xurmatû ji aliyê Dewleta Islamî, mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî û PKKê bike. Tê de 4 Kurd hene. 3 ji wan ji Kurdistana Iraqê û 1 ji Kurdistana Tirkiyê ne.
*(rudaw.net, 15.12.2017)*

**8 KURD BALYOZÊN IRAQÊ NE**
Encumena wezîrên iraqî 28 balyoz (sefîr) li cihanê, ku ji wan 8 Kurd, nîşan kirin. Welatên ku ewê ev balyozên kurd biçin wan ev in: Swêd, Hollanda, Ukranya, Îtalya, Çîn, Yûnanistan, Vatîka, Îtalya.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

**ZAROKÊN DAIŞÊ LI KAMPAN**
Wezareta iraqî ya karên civakî daxuyand ku jimareke mezzin ji zarokên şervanên biyanî yên Dewleta Islamî li kampan dimînin, ku dadgeh bi çarenivîsa (qeder) wan xerîk (mijûl) e û ku hukûmeta iraqî tecrube dike ku wan vegerîne welatên wan. Piraniya wan bi zorê hati bûn çekdar kirin û weka serbazên (esker) xwekuj (intiharî) hati bûn bi kar anîn. Hin ji wan nasnameya wan a fermî (resmî) nîn e.

Li gora rapporeke navneteweyî, di 2014 de, nêzîkî 40.000 çekdarên biyanî, ji 110 welatan, di nav Dewleta Islamî de hebûn. Ji wan, 3.417 ji Rûsya, 3.244 ji Erebistana Suûdî, 3.000 ji Urdunê, 2.926 ji Tûnisê, 1.910 ji Fransa û 915 ji Almanya.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

**CIVÎNA HEVBENDIYÊ LI BEXDADÊ**
Şandeke bilind a Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta Islamî bi wezîrê iraqî yê parastinê re, li Bexdadê, civiya. Alîkarê berpisiyarê vê Hevbendiyê, gênêral Felix Gendey, di civînê de got ku di 3 salên dawîn de, vê Hevbendiya Navneteweyî ji 4 milyon û nîv Iraqî bêtir û 52.000 m2 ji axa iraqî rizgar kirin. Û wî got jî ku Hevbendiyê rahênana (tedrîb) ji 123.000 endamên hêzên ewlehiyê yên iraqî bêtir, ku ji wan 25.000 polîs, kir û ku bi dayîna çekkan û kirina rahênanan, ew di "şirîkatiya Iraqê" de berdewam e.

Şerrê li dijî Dewleta Islamî li Iraq û Sûriyê di gehîneka (qonax) xwe ya dawîn de ye. Li gora berdevkê Hevbendiya Navneteweyî, Ryan Dillon, ji 3.000 şervanên islamî kêmtir li Sûriye û Iraqê mane.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

**EBADÎ NAVÊ "PÊŞMERGE" NABÊJE**
***Di 06 Kanûn de***, di axaftineke xwe li Bexdadê de, serokwezîrê iraqî Heyder Ebadî got ku: *" Parastina yekbûna Iraqê û nehiştina perçebûna wê serfiraziyeke din, ku ji ya li ser mîlîsên Dewleta Islamî ne kêmtir e, ye".*

Wezareta kurdî ya Pêşmerge bersîva wî da û got ku wî di axaftina xwe de navê Pêşmergeyên mêrxas ne got û ku bê wan ewê Iraqê nikariba dijmin bişkîne. Û wê got jî ku di vî şerrê li dijî Dewleta Islamî de, ji 1.800 Pêşmerge bêtir hatin kuştin û ji 10.000 bêtir jî birîndar bûn.

Berdevkê Ebadî, Se'id Hedîsî, got ku ew şaşiyeke daktîlo bû! Û wî ji hukûmeta Kurdistanê xwest ku deriyên xwe yên sînorî û firokeyên xwe radestî (teslîm) hukûmeta iraqî bike.

Roja din, Ebadî gotina Pêşmerge xist nav axaftina xwe.
*(rudaw.net, 08,09,12. 12. 2017)*

## EL-MALIKÎ NAVÊ PÊŞMERGE DIBÊJE

***Di 09 Kanûn de***, di vajayê (eks) serokwezîr Ebadî de, cîgirê serokê Iraqê û serokê Partiya Dewleta Yasa, Nûrî El-Malikî, bi hinceta (munasebet) biserketina li ser Dewleta Islamî, daxuyaniyek kir û tê de Pêşmerge, ji bo rola wan li tenişta yên din di vî şerrî de, pîroz kirin.
*(rudaw.net, 09.12.2017)*

## EBADÎ BIDAWÎBÛNA ŞERR RADIGIHÎNE

***Di 09 Kanûn de***, serokwezîr û fermandarê hêzên çekdar ên iraqî, Heyder Ebadî, daxuyand ku hezên wî sînorê di navbera Iraq û Sûriyê de bi tevayî kontrol kir û ku şerrê li dijî Dewleta Islamî kutah (xelas) bû.
*(rudaw.net, 09.12.2017)*

## XWEPÊŞANDAN LI KURDISTANÊ LI DIJÎ EBADÎ

***Di 11 Kanûn de***, li ser riya Hewlêr-Kerkûkê, bi sedan xwendekarên zanîngeha Hewlêrê li dijî serokwezîrê iraqî Heyder Ebadî xwe pêşan da (meşiyan), ji bo ku wî navê Pêşmerge ne got (li jor binêre).

***Di 12 Kanûn de***, xwendekar û mamosteyên zanîngeha Akrê jî li dijî Ebadî xwe pêşan da.
*(rudaw.net, 11 û 12.12.2017)*

## BERTEKA SEROKWEZÎRÊ KURD

***Di 28 Kanûn de***, piştî civîneke hukûmeta Kurdistanê, serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî, konfêranseke çapemeniyê pêk anî û tê de got ku ew guherandina helwesta serokwezîrê iraqî, Heyder Ebadî, baş dinirxîne (li jor binêre). Û wî Ebadî û hin endamên din ên hukumeta iraqî, ji bo hin pirsên di navbera Bexdad û Hewlêrê de, jî rexne kirin.
*(rudaw.net, 28.12.2017)*

## PÊTROLA KURDISTANÊ KÊM DIBE

Berê 16. 10. 2017, dema ku leşkerê iraqî û mîlîsên şîî êrîşî Kerkûkê kir, derxistin û firotina pêtrolê li Kurdistanê kêm bû. Ji berê, ev bîr di nav destên Kurdan de bûn û 600.000 bermîl jê dihatin derxistin û şandin bendera tirkî ya Ceyhanê. Nuha, nîvê wan maye.
*(rudaw.net, 09.12.2017)*

## BEXDAD DERMANAN DIŞÎNE KURDISTANÊ

***Di 27 Kanûn de***, birêvebirê giştî yê navenda tendurustiya Suleymaniyê, Dr. Mîran Muhammed, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku Bexdad beşek ji dermanan şand vî bajarî, ku ev têr nake, lê ku ji netiştî baştir e. Wî got ku ew bawer dike ku ewê dermanên din li dijî pençeşêrê (kansêr) werin şandin Kurdistanê.

Piştî giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê, Bexdadê şandina dermanan ji vê herêmê re rawestandi bû.
*(rudaw.net, 27.12.2017)*

## AJANSA RÛDAWÊ ALÎKARIYA QURBANÊN ERDHEJÊ DIKE

***Di 28 Kanûn de***, ajansa çapemaniya kurdî Rûdawê ji Derbendîxanê re 270.000 dolar, 4.000 ton çîmento, 124 ton darên hessinî … ji qurbanên endheja ku di 12. 11. 2017 de li Kurdistana Îran û Iraqê bû şandin (li bultena me ya buhurî, N° 152, binêre).

Alîkarê muxtarê Derbendîxanê, Zana Behadîn, got ku vê alîkariya Rûdawê nîvê pêwîstiyên rûniştevanan dabîn (te'mîn) kir.
*(rudaw.net, 28.12.2017)*

## TECRUBEYA EREBKIRINA KERKÛKÊ

Jimarek ji malbatên ereb, bi piştgiriya hêzên polîsê federal ê iraqî, ketin nav malên rûniştevanên gundên kurdî ku li sînorê navçeya Kerkûk-Mexmûrê ne û ji wan xwest ku di 72 demjimêran de jê derketin.

Ev Ereb li van navçeyên kurdî ji aliyê Saddam Huseyn hati bûn bi cî kirin. Nuha, ew tecrube dikin ku vegerin.
*(rudaw.net, 29.12.2017)*

**DÛMAHÎKA ERDHEJA LI KURDISTANÊ**
Piştî erdheja mezzin li Kirmanşanê, ***di 12. 11. 2017 de*** (li bultena me ya buhurî binêre), ji 57.000 malbat bêtir li bin konan dijîn û 18.948 kes li nexweşxaneyan in. Nêzîkî 500 kes wefat kir.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

**ERDHEJ LI ÎRANÊ**
***Di 12 Kanûn 2017 de***, mehek piştî erdheja li Kurdistanê, yeke din li parêzgeha îranî ya Kirmanê bû. Dibistan hatin girtin. Hîva Sor û hêzên ewlehiyê di amadebaşiyê de ne û nexweşxaneyan tedbîrên pêwîst stendin.
*(rudaw.net, 12.12.2017)*

**BOMBEKIRINÊN TIRKIYÊ**
Partiya kurdî YRK (Yekîneyên Parastina Rojhilata Kurdistanê), baskê îranî yê PKKê, daxuyand ku di ***27. 12. 2017*** de, leşkerê tirkî çiyayê Asosê bombe kir û 3 ji şervanên wê, ku yek ji wan ji Kurdistana Sûriyê ye, kuştin. Û wê got jî ku rez û bexçeyên rûniştevanan gelek zarar dîtin.
*(rudaw.net, 03.12.2017)*

**NIVÎSKAREKÎ KURD TÊ RAGIRTIN**



***Di 30.11.2017 de***, hêzên ewlehiyê yên îranî nivîskarê kurd Alî Reza Sepahî li bajarê Kelatê, li navçeya Xorasanê, girt û ew bir zîndana Meşhedê. Sedema vê yekê ne naskirî ye. Parêzerên (avukat) wî li benda bersîva desthilatan in.

Alî Reza Sepahî di 1971 bûye. Ew rojnamevan û helbestvan e. Di 1995 de, mastera fîlolojiya fransî li zanîngeha Meşhedê stend. Wî tê de fêrên fransî dan, lê ji sedema çalakiyên wî ji bo Kurdan, ew ji kar hat avêtin û demeke dirêj li zîndanê ma.

Sepahî 15 pirtûk bi fransî (wergerandin û lêgerîn) û 10 bi kurdî nivîsîne. Lê weşandina wan bi kurdî hatiye qedexe kirin.
*(rudaw.net, 04.12.2017)*

**PEN CLUB'A KURDÎ AZADKIRINA SEPAHÎ DIXWAZE**
Navenda Pen Club a Kurdî ji desthilatên îranî xwest ku tavil nivîskar Alî Reza Sepahî azad bikin û bangî rêxistinên sîvîl û ronakbîran li cihanê kir ku piştgiriya wî bikin.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

**JI 87 MEHAN DE MÛÇE NE HATINE DAYÎN**
Şaredarê Merîwanê, Cemal Şerîfî, daxuyand ku ji 8 mehan de, karbidest û karkerên şaredariyê mûçeyên xwe ne stendine. Ev yek, ji sedema kêmbûna buceyê.
*(rudaw.net, 05.12.2017)*

**GIRTINA DERIYÊN SÎNORÎ**
***Ji du mehan de***, deriyên sînorî yên Perwîzxan, Başmax û Hacî Umranê, yên bi Kurdistana Iraqê re, hatine girtin. Ev yek, ji sedema giştpirsiya li ser serxwebûnê, ku li Kurdistana Iraqê di 25. 09. 2017, de bû.

Parlementerê kurd li parlementa îranî, Resûl Xizrî, got ku girtina van deriyan kartêkirineke (te'sîr) wê ya gelek xerab li ser rewşa aborî ya rûniştevanên van sînoran heye. Û wî got jî ku ne bitenê 8.000 kolber û 30.000 karkerên Pîranşarê dikarin karên xwe hunda bikin, lê ku 7 milyon bazargan, ku li 7 parêzgehên îranî dimînin, encamên (netîce) vê yekê dikişînin.

Parlementerekî din ê kurd, Huşmetullah Felahtpêşe, endamê encumena ewlehiya neteweyî û ramyara (siyaset) derve, got ku

siyaseta ku ji aliyê Îranê, li hemberî Herêma Kurdistanê tê ajotin li dijî berjewendiyên neteweyî yên Îranê ne.
*(rudaw.net, 07 û 29.12.2017)*

**BIRYARA JI NUH DE VEKIRINA SÎNOR**
Encumena bilind a ewlehiya neteweyî li Îranê biryar stend ku deriyên sînorî yên jorîn, ên bi Kurdistana Iraqê re, ji nuh de veke.

Murteza Sefarî Netenzî, parlementer û endamê encumena dîplomatîk a ewlehiya îranî, ji mêdyayên îranî re daxuyand ku divê ku Îran pêwendiyên xwe yên aborî û bazarganiyî bi Herêma Kurdistna Iraqê re xurttir bike.
*(rudaw.net, 11.12.2017)*

**8 KES TÊN BI DAR VE KIRIN**
Rêxistina Mafên Mirov li Îranê daxuyand ku ***di 20. 12. 2017 de***, 8 girtiyên zîndana Reca li hewşê hatin bi dar ve kirin (daleqandin). Ew bi kuştin hati bûn tawanbar (bi sûc) kirin.

Li gora vê rêxistinê, ji 2016 de, 142 kes li tevayiya Îranê, bi tawana kuştinê, hatin bi dar ve kirin.

Li hin welatan, weka Çîn, Îran, Erebistana Suudî, Amerîka, Pakistan, Yemen û Koreya Bakur, kesên ku tawanên mezzin dikin tên bi dar ve kirin.
*(rudaw.net, 21.12.2017)*

**DU PÊŞMERGE LI KURDISTANA IRAQÊ TÊN REVANDIN**
Du Pêşmergeyên partiya Komela, ya Kurdistana Îranê, Seîdî Muezzez û Reşîd Efşarî, dema ku ji Suleymaniyê diçûn Hewlêrê, ji aliyê mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî hatin revandin û birin ciyekî ne naskirî. Berpirsiyarên bilind ên iraqî û hêzên amerîkî tecrube dikin ku wan bibînin.
*(rudaw.net, 22.12.2017)*

**ZÊR LI KURDISTANÊ**
18 ton zêr li bajarokê Serşîwê, yê girêdayî bajarê Seqizê, li parêzgeha Sinê, hatin dîtin. Hukûmeta îranî destûra derxistina zêr ji 3 kaniyên din, li heman navçeyê, da.

Kurdistan dewlemendtirîn parêzgehên Îranê bi zêr e. Ew xwediya 52% ye. Di 2004 de, li bajarokê Têkabê, parêzgeha Urmiyê, û li Qorwê, parêzgeha Sinê, jê hatin derxistin.

Rûniştevanên van navçeyan dibêjin ku derxistina zêr alîkariya baştirbûna rewşa wan a kar û pêşketinê ne kir.
*(rudaw.net, 28.12.2017)*

**XWEPÊŞANDAN LI ÎRANÊ**
***Di 28 Kanûn 2017 de***, bi sedan kes li parêzgehên îranî yên Xorasan, Yezd, Simnan û Bûşehrê xwe pêşan da (meşiyan). Ev yek ji bo riswakirina (protêsto) behabûna jiyanê, gendelî (ruşwet) û nebûna dadiyê (edalet).

Li Meşedê, 2mîn bajarê Îranê, polîsan êrîşî xwepêşandiyan kir û gazên hêstirîn li ser wan rijandin. Xwepêşandiyan jî kevvir avêtin wan. 52 kes hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 29.12.2017)*

***4 xwepêşandî tên kuştin***
***Di 30 Kanûn de***, xwepêşandan li çend bajarên Îran û Kurdistanê bûn. Li Tehranê, bi hezaran kes derketin kuçan û duruşm (slogan) li dijî birêvebirên Komara Islamî avêtin. 4 xwepêşandî hatin kuştin.
*(rudaw.net, 30.12.2017)*

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***DÊR EL-ZOR***

***169 islamî tên kuştin***
Di 84 rojên şerr li dijî Dewleta Islamî de, li Dêr El-Zorê, 72 şervanên vê rêxistinê ji aliyê Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", ku partiya kurdi PYD bi rê ve dibe, hatin kuştin. Çend gundên Dêr El-Zorê hatin çavdêrî (kontrol) kirin.

Li Rojhilata Dêr El-Zorê, piştî pevçûnan, HSD 30 şervanên din ên Dewleta Islamî kuştin.

Piştî şerrên giran, HSD 4 gundên nêzîkî bajarokê Hecînê rizgar kirin û 67 şervanên islamî kuştin.
*(rudaw.net, 03,23 û 30.12.2017)*

***Piştgiriya Rûsya û Amerîka***
***Di 03 Kanûn de***, berdevkê hêzên kurdî "YPG", Nûrî Mehmûd, bi alîkarê fermandarê hêzên rûsî li Sûriyê, Alexey Kîm, re civiya û daxuyand ku hêzên wî, bi piştgiriya Rûsya û Amerîka, derdorên Dêr El-Zorê, li Rojhilata çemmê Firatê, bicarek ji Dewleta Islamî rizgar kirin.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

***2 zarokên kurd ên êzdî tên kuştin***
Di şerr de, şervanên Dewleta Islamî Kurdên êzdî weka mertalên mirovî bi kar anîn. Du zarok, ku xuşk û bira (16 û 15 salî) bûn, hatin kuştin. Bavê wan, Newwaf Ezîz, got ku heta nuha 3.000 Kurdên êzdî di nav destên Dewleta Islamî de ne.
*(rudaw.net, 20.12.2017)*

***REQQA***

***Îran piştgiriya islamiyan dike***
Rawêjkarê (muşawir) hukûmeta îranî ji bo karên navneteweyî, Alî Ekber Wilayetî, li konfêranseke çapemeniyê li Tehranê got ku Îran piştgiriya komên islamî yên cihê li Sûriyê, sunnî yan şîî bin, dike. Û wî got jî ku serfiraziyên wan bi saya piştgiriya serokê mezzin ê Îranê, Ayatollah Xameneyî, û avakerê Komara Îranê, Ayatollah Xomeynî, bûn û ku ewê leşkerê amerîkî ji Reqqa derkeve.
*(rudaw.net, 03.12.2017)*

***8 DAIŞên fransî tên ragirtin***
Li gora çapemeniya fransî, Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD, ku YPG'ên kurdî bi rê ve dibin, 8 şervanên fransî yên Dewleta Islamî ragirtin. Navê yek ji wan Thomas Barnuel e û jê re "Mîr" tê gotin.
*(rudaw.net, 29.12.2017)*

***MUNBIC***

***235 laş di  3 gorên hevrayî de***
Encumena leşkerî ya Munbicî, li Kurdistanê, daxuyand ku wê 3 gorên hevrayî, ku tê de 235 laş hene, li gundê Qebr Êmo, 23 km ji Munbicê, dîtin. Ew hemî sîvîlên ku li zîndanên Dewelat Islamî hati bûn girtin, û piştre di 2014 de hati bûn kuştin, bûn. Di 2016 de, navçeya Munbicê ji aliyê YPG, bi piştgiriya Amerîka û Hevbendiya Navneteweyî Li Dijî Dewleta Islamî, hat rizgar kirin. Piştre, YPG birêvebirina Munbicê radestî Encumena Sîvîl kir.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

***ŞAM***

***DAIŞ dikeve Başûrê Şamê***
***Di 13 Kanûn de***, şervanên Dewleta Islamî êrîşeke mezzin, ji kampên penaberên filistînî ya "Yermûk"ê, li Başûrê Şamê, kir. Piştî şerrên dijwar, Dewleta Islamî çavdêriya (kontrol) beşek ji vê taxê kir. Piştre, firokeyên surî ew bombe kir.

Nuha, ev kamp li bin çavdêriya Dewleta Islamî ye û ji aliyê leşkerê sûrî û mîlîsên nêzîkî wî hatiye dorpêç kirin.
*(rudaw.net, 14.12.2017)*

***HESÎÇÊ***

***Duruşmên DAIŞê tên rakirin***
Rêxistina kurdî Doz kampanyek li Hesîçê, mezzintirîn bajarên Kurdistana Sûriyê, pê anî, ji bo rakirina duruşmên (slogan) ku ji aliyê Dewleta Islamî li ser dîwaran hatine nivîsîn û li ciyê wan nivisîna peyamên (message) aşîtiyê.

Li Hesîçê Kurd, Ereb û Fille dijîn. Komên islamî yên têrrorîst yên cihê tecrube kir ku vê çanda bihevrejiyanê nehêlin.
*(rudaw.net, 29.12.2017)*

***Projeyeke hunerî ji bo zarokan***
Li kampa Qana, ya penaberên Dêr El-Zorê, ku li Başûrê Hesîçê ye, rêxistina kurdî Xewn projeyeke hunderî ji bo zarokan pêk anî. Ew wênekêşî (resm) û muzîkê hînî wan dike.
*(rudaw.net, 31.12.2017)*

**TIRKIYE GUNDÊN EFRÎNÊ BOMBE DIKE**
Careke din, leşkerê tirkî û hêzên dijberiya sûrî ku ew piştgiriya wan dike, bi şev, gundên Basufan û Beiyê, yên bajarokê Şêrawa, yê girêdayî Efrînê, bombe kirin. Hêzên kurdî, YPG û YPJ (baskê jinan ê YPG) bi xurtî bersîva wan da.
*(rudaw.net, 12.12.2017)*

**ŞERR LI DIJÎ TIRKIYÊ LI KOBANÎ**
***Di 13 Kanûn 2017 de***, şerr di navbera şervanên kurd "YPG" û leşkerê tirkî de, li sînorê kantona Kobanî, bûn. 2 serbazên (esker) tirk hatin kuştin. YPG daxuyand ku leşkerê tirkî ket nav sînorê Kobanî û axa Kurdistana Sûriyê, ji bo ku dîwarekî li ser sînor ava bike. Şerr 3 demjimêran ajot. Li dawiyê, leşkerê tirkî xwe kişand.

Li yek ji gundên Kobanî, Aşmê, gora avakerê Imperatoriya Osmanî, Suleyman Şah, heye. Loma Tirkiye hergav tecrube dike ku bikeve wê derê.
*(rudaw.net, 13.12.2017)*

**LEŞKERÊ TIRKÎ EFRÎNE BOMBE DIKE**
***Di 18 Kanûn de***, cardin leşkerê tirkî li dirêjayiya sînorê navçeya Efrînê belav bû.
*(rudaw.net, 19.12.2017)*

Li gora mêdyayên tirkî, komên dijberiya sûrî, yên nêzîkî Tirkiyê, gundên Efrînê bombe kirin û hêzên kurdî yên YPG bersîva wan da. Li gora YPG, 7 şervanên vê dijberiyê birîndar bûn.
*(rudaw.net, 30.12.2017)*

**HILBIJARTINÊN CIHÎ**
***Di 01 Kanûn 2017 de***, hilbijartinên cihê (mehellî, lokal) li Kurdistana Sûriyê bûn (partiya kurdî PYD navê vê navçeyê kiriye "Fêdêralîsma Dêmokratîk a Bakurê Sûriyê", ji bo ku gotina "Kurdistan", ku bi awakî fermî qedexe ye, nebêje). 5.720 namzed, li 3 navçeyên kurdî yên Cezîrê, Kobanî (Firat) û Efrînê, hebûn. 69% ji xelkê Kurdistanê dengê xwe da.

Du şandên kurdî, yek ji Parlementa Kurdistana Iraqê û yek jî ji Kurdistana Tirkiyê, û şandeke leşkerî ya rûsî, çûn Kurdistana Sûriyê, ji bo çavdêrîkirina (kontrol) van hilbijartinan.

Şanda Parlementa Kurdistana Iraqê rastî partiyên kurdî yên Sûriyê hat. Piştre, seroka wê, Amîne Zikrî, konfêranseke çapemeniyê pêk anî û tê de ji hemî aliyan xwest ku bi hev re kar bikin.

Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS" daxuyand ku PYD ne hişt ku ew beşdar bibe amadekirina van hilbijartinan. Bi ser de jî, girtiyên ENKSê li zîndanên PYD hene.
*(rudaw.net, 01,03 û 05.12.2017)*

**BERTEKA SEROKÊ TIRKIYÊ**
Li civîneke partiya xwe AKP, serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan Amerîka bi piştgirîkirina partiyên kurdî li Sûriyê tawanbar kir: *"Îcar aşkere ye ku planeke amerîkî li dijî me heye. Em dibînin ku wê korrîdoreke têrrorê ji rojhilat heta rojavaya Bakurê Sûriyê vekiriye"* (Ji bo ku nebêje "Kurdistana Sûriyê, Erdoğan got *"Bakurê Sûriyê"*. Buroya Kurdî). Erdoğan Amerîka bi alîkarîkirina Kurdên Sûriyê ku dewleteke kurdî ava bikin tawanbar dike.

Li kongreya partiya xwe li Kastamonu, Erdoğan got ku ewê rûniştevanên welatê wî tiştê ku anî serê Dewleta Islamî bînin serê YPG'ên kurdî.
*(rudaw.net, 05 û 30.12.2017)*

**DAXUYANIYA RÛSYA**
Fermandarê tevgerên rûsî li Sûriyê, gênêral Sergey Rusdkoy, daxuyand ku hêzên leşkerî yên rûsî bi hêzên kurdî û yên din li Sûriyê re di hemahengiyê (coordination) de ne.

Piştî 2 salên beşdarbûna şerrê li Sûriyê, beşek ji leşkerê rûsî vegeriya welatê xwe.
*(rudaw.net, 07 û 16.12.2017)*

**DAXUYANIYA AMERÎKA**
Berdevkê CENTCOM (Fermandariya Navendî ya Hêzên Amerîkî), John Thomas, di daxuyaniyeke çapemeniyê de got ku ewê hêzên hevbend piştgiriya Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD), heta biryara civîna Jenêvê, bajon (dewam bikin). Ev yek ji bo şerkirina komên din ên têrrorîst, ku ne yên Dewleta Islamî ne, weka Jebhet El-Nusre, ku nêzîkî El-Qaide ye. Û wî got jî ku ewê hêzên wî xwe nexin nav şerrê hundirî yê Sûriyê (komên dijberiyê li dijî serok El-Esed).



Amerîka Hevbendiya Navneteweyî li Dijî Dewleta Islamî bi rê ve dibe, çekkan ji şervanên sûrî re dişîne û rahênana (tedrîb) şervanên HSD, ku ji aliyê YPG'ên kurdî tên bi rê birin, dike.

Li gel nerazîbûna mezzin a Tirkiyê, Amerîka bi xurtî piştgiriya tevgerên Munbic, Reqqa, Tebqa û Rojhilata Dêr El-Zorê kir.
*(rudaw.net, 12.12.2017)*

**DAXUYANIYA KURDAN**
Bi nêzîkbûna dawiya Dewleta Islamî, Kurdên Sûriyê ditirsin ku hêzên amerîkî biçin û nema piştgiriya wan bikin.
*(rudaw.net, 17.12.20174)*

**DAXUYANIYA SÛRIYÊ**
Di hevpeyvîneke bi kanaleke îranî re, cîgirê wezîrê sûrî yê karên derve, Feyad Miqdad, got ku Amerîka piştgiriya Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", li dijî xwestina gelê sûrî, dike. Wî got ku HSD Dewleteke Islamî ya nuh in û ku her kesekî ku li dijî dewletê rahêje çekkan têrrorîst e.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 21.12.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**AMERÎKA**

***Stendina çekkên giran ji Kurdên Sûriyê***
Berdevkê Maseya Rojhilata Navîn, wezîrê amerîkî yê parastinê, Eric Pahon, got ku piştî guvaşên (tazyîq) Tirkiyê, ewê welatê wî çekkên giran ku da bûn şervanên kurd ên Sûriyê "YPG" vegerîne.
*(rudaw.net, 01.12.2017)*

***Hişyarî ji serokê sûrî re***
Li konfêranseke çapemeniyê li Pentagonê, wezîrê amerîkî yê karên derve, James Mattis, bersîv da pirsên li ser Sûriye û Kurdistana Sûriyê. Wî hişyarî da serokê sûrî Beşşar El-Esed ku êrîşî Kurdên Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD" neke û got ku ev hêz hevbendên Amerîka ne. Û wî got jî ku xêzeke ku meriv nikare derbas bike di navbera hêrêmên ku li bin hêzên hevbendiyê de ne û yên ku li bin hêzên sûrî de ne heye.
*(rudaw.net, 30.12.2017)*

***Piştgirî ji Kurdên Iraqê re***
Wezîrê amerîkî yê karên derve, Rex Tillerson, daxuyand ku ewê welatê wî piştgiriya Kurdan, ji bo bicîanîna destûra iraqî, bike, ji bo ku ew tucar ne hatiye bi cî kirin (tatbîq kirin).
*(rudaw.net, 13.12.2017)*

***Dawiya dewleta yekbûyî li Iraq û Sûriyê***

Serokê berê yê servîsên dizzî yên amerîkî (CIA), Michael Hayden, beşdar bû 11mîn Konfêransa li ser Têrrorîsmê, ku ji aliyê Rêxistina Jamestown li Washingtonê hat pêk anîn. Piştre, ew bi Dengê Amerîka re li ser Kurdên Iraq û Sûriyê peyivî. Wî got ku ev her du dewletên yekbûyî ne mane, ku ewê Kurdistaneke otonom li her yek ji wan were ava kirin û ku ewê gelên din jî xuya bibin.

***Mu'cize li Kurdistana Iraqê***

Rawêjkarê ewlehiya neteweyî li Amerîka, Herbert Raymond McMaster, jî beşdar bû vê konfêransê. Wî got ku mu'cizeyek li Kurdistana Iraqê bûye, ji bo ku ji 1991 de, sala ku Amerîka alîkariya wê kiri bû, tê de tu kirinên tund (şiddet) nîn in.

*(rudaw.net, 15.12.2017)*

***Ji Tirkan re vîza nîn e***

Balyozxaneya (sefaretxane) amerîkî li Tirkiyê daxuyand ku heta Çile 2019, ewê Tirk nema karibin vîzeyên amerîkî bistînin. Ev yek ji sedema bûyerên dawîn ku li Tirkiyê dibin. Tirkiyê bertek da (rêaksyon) û vîzayên xwe ji bo Amerîkiyan rawestandin.

Ev in sedemên xerabûna pêwendiyên di navbera van her du welatan de:

1- Amerîka Tirkiyê bi şikandina ambargoya amerîkî li ser Îranê, bi riya karsaz Reza Zarraf, tawanbar dike.

2- Tirkiye Amerîka, ji bo hewandina oldarê tirk Fethullah Gülen, rexne dike. Ew wî bi amadekirina darbeya leşkerî, ku bi ser neket, li Tirkiyê, di 15. 07. 2016 de, tawanbar dike.

3- Pêwendiyên Tirkiyê bi Rûsya û Îranê re û kirrîna mûşekên (fusées) S-400 ji Rûsya.

4- Regirtina keşşeyekî û karmendekî tirk ê balyozxaneya amerîkî, Metin Topuz, ji aliyê Tirkiyê.

5- Piştgiriya Amerîka ji şervanên kurd ên Sûriyê, "YPG", re.

6- Tirkiye li dijî giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistana Iraqê ye.

*(rudaw.net, 19.12.2017)*

***Bangkirina alîkariya Îraniyan***

Berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Heather Nauerth, piştgiriya welatê xwe ji gelê îranî re, ji bo xwepêşandanên wî yên mezzin li dijî hukûmeta îranî (li jor binêre), ravekir û bangî cihanê kir ku heman (eynî) tiştî bike. Wê got ku Îran, ku welatekî ku ji aliyê aborî, dîrokî û çandî dewlemend e, qels bûye û xwîn tê de diherike.

*(rudaw.net, 30.12.2017)*

**HOLLANDA**

***Xwestina fişaran li ser Iraqê***




Nimînendeyê hukûmeta Kurdistana Iraqê li bal Yekîtiya Ewropî, Dilawer Ajgeyî, tevî şandeke Kurdistana Iraqê, ji Bruksêlê çû Den Haguê. Wî seredana wezareta hollandî ya karên derve kir û jê xwest ku fişaran (tezyîq, pressions) li ser Bexdadê bike, ji bo ku dyalogek di navbera hukûmetên kurdî û iraqî de karibe dest pê bike. Ev yek di çarçeveya Yekîtiya Ewropî û hevdîtinên dualiyî de.

Şand ji aliyê rawêjkarê bilind ê vê wezareta hollandî ya karên derve, Marc Zellinrat; birêvebira karên Rojhilata Navîn, Eline Bosman; û berpirsiyara karên Iraqê, Simone Van Der Bruk, hat pêşwazî kirin.

*(rudaw.net, 02.12.2017)*

## U. N.

***Zoriyên alîkarîkirina Iraqê***

Buroya karên mirovî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî daxuyand ku ji sedema pevçûnên di navbera hêzên iraqî û Pêşmergeyên kurd di Cotmeha buhurî de, rêxistina wî nikari bû alîkarî ji 340.000 kesan re, li navçeyên Nînewa û Kerkûkê (herêmên kurdî ku li derveyî desthilata Kurdistanê ne): Tilefer, Şingal, Tilkêf û Hemdaniyê, bişîne. Ev alîkarî ji xwarin, sûtemenî û destgehên tendurustiyê pêk tê.

Bi ser de jî, vê buroyê daxuyand ku ji sedema girtina navçeya Mexmûrê, wê nikari bû alîkarî ji 270.000 kesên ku li kampên Başûrê Nînewa dimînin re bişîne. Loma, ew bi awayekî sînorkirî ji Xazirê tê şandin.

Vê buroyê got jî ku ji sedema girtina deriyê Pirdê, rêxistinên mirovî neçar dimînin ku riya Dîbeg û Dubizê, ku dûrtir e, bistînin.

*(rudaw.net, 09.12.2017)*

## U.N. Û HUMAND RIGHTS WATCH

***Bidarvekirin li Iraqê***

Berdevka U.N.ê, Lisa Trusel, daxuyand ku ***di 14. 12. 2017 de***, 38 kes li Nasiriyyê, bi tawana têrrorîsmê hatin bi dar ve kirin (daleqandin), û ku ***di Îlon 2017 de***, 42 kesên din hati bûn bi dar ve kirin. Wê dilniya (te'kîd) kir ku çend caran U.N.ê ji berpirsiyarên iraqî xwest ku bidarvekirinan rake (ilxa bike) û pergala (système) xwe ya dadiyê baştir bike (réforme).

Ji berê, berpirsiyarê şaxa Rojhilata Navîn û Afrîqa Bakur, a rêxistina Human Rights Watch, Belqîs Jarah, ji ajansa Rûdawê re daxuyandi bû ku bi dehan kes, bi tawana endambûna Dewleta Islamî, hatine ragirtin û piştre ji aliyê dadgehê hatine bi dar ve kirin (daleqandin). Û wî got jî ku doza (da'wa) wan ji dejmijêrek (saetek) kêmtir ajot (dewam kir).

***Di 06 Kanûn de***, Human Rights Watch rapporeke mezzin li ser vê babetê weşand.

*(rudaw.net, 16.12.2017)*

## FRANSA

***60% ji petrola Sûriyê di destên Kurdan de ye***

Wezîrê fransî yê karên derve, Jean Yves Le Diran, got ku 40% ji herêmên sûrî, ku ji aliyê Dewleta Islamî hati bûn çavdêrî (kontrol) kirin, ji aliyê hêzên kurdî "HSD" hatin rizgar kirin û ku 60% ji bîrên pêtrolê li Sûriyê di destên wan de ne.

*(rudaw.net, 09.12.2017)*

## BRÎTANYA MEZZIN

***Vexwendina serokwezîrê kurd***

***Di 12 Kanûn 2017 de***, di axaftineke têlêfonî de, serokwezîra brîtanî, Theresa May, serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, vexwend (dawet kir) seredana welatê xwe. Wê piştgiriya Brîtanya Mezzin ji mafên Kurdan re, di nav Iraqeke yekbûyî de, dilniya (te'kîd) kir.

May daxuyand jî ku divê ku geştên ezmanî yên navneteweyî li firokexaneyên Hewlêr û Suleymaniyê dest pê bikin.

*(rudaw.net, 12.12; avestakurd.net, 13.12.2017)*

## RÛSYA

***Tutişt nikare pêwendiyên bi Kurdistana Iraqê re têk bibe***

Li konfêranseke salane ya çapemeniyê, serokê rûsî Vladimir Putin bersîv da pirsên tora mêdyayî ya kurdî Rûdawê li ser giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistana Iraqê (li bultenên me yên buhurî binêre). Wî got ku pêwendiyên dîrokî yên Rûsya bi Kurdistana Iraqê re hene û ku tutişt nikare wan têk bibe (xerab bike). Û wî got jî ku ew hêvî dike ku pirsên di navbera Bexdad û Hewlêrê de bi riya dyalogê, li ser bingeha destûra iraqê, werin çare kirin.

*(rudaw.net, avestakurd.net, 14.12.2017)*

***Amerîka naxwaze ku ji Sûriyê derkeve***

Berdevkê wezareta rûsî ya parastinê, Igor Konoçênkov, daxuyand ku Amerîka, bi gotina ku ewê xwe ji Sûriyê bikişîne, civata navneteweyî dixapîne. Wî dilniya (te'kîd) kir ku ewê li wê derê bimîne, li gel ku sedema vê yekê ne maye.

*(rudaw.net, 14.12.2017)*

***Ewê Rûsya 75 salan li Sûriyê bimîne***

Parlementa rûsî peyama (message) serokê rûsî Vladimir Putin ku ewê bingehên leşkerî yên rûsî 75 salan li Sûriyê bimînin pejirand (qebûl kir).
*(rudaw.net, 22.12.2017)*

**ALMANYA**

***Dirêjkirina rahênanê li Kurdistana Iraqê***

***Di 12 Kanûn 2017 de***, parlementa fêdêral a almanî biryar stend ku rahênana (tedrîb) leşkerî ya Pêşmergeyan li Kurdistana Iraqê heta Nîsan 2018 de dirêj bike. Wezîra parastinê, Ursula von der Leyen, got ku ew dixwaze ku ev dirêjkirin salekê bajo, ji bo ku metirsiya (tehlike) Dewleta Islamî hîn ne çûye. Ev yek di çarçeveya Hevbendiya Navneteweyî de. Almanya çekkên giran jî dan Kurdistanê.
*(rudaw.net, 16.12.2017)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Foruma aborî li Dîlokê (Antep)***

***Di 20 Kanûn de***, li Dîlokê Foruma Kar û Berhemanînê ya Dîlok-Iraqê bû. Ewê heta 22 Kanûn bajo, ji bo xurtkirina pêwendiyên aborî di navbera her du welatan de.
*(rudaw.net, 20.12.2017)*

**FMI**

***Divê ku Iraq cezayên li ser Kurdistanê rake***

Ji bo ku FMP (Fond Monétaire International) deynan bide Iraqê, wê weka merc (şert) danî ku ew cezayên xwe yên aborî li ser Kurdistana Iraqê rake û 17% ji buceya xwe bide wê.

Di 2007 de, FMI deynekî 5 milyar dolaran da bû Iraqê, bi mercê (şert) ku ew wî di 2014 de vegerîne. Piştre, di 2015 de, wê deynekî din ê 5 milyar û 4 milyon dolaran da bû wê û xwesti bû ku ew wî li dawiya 2017 de vegerîne. Nuha, deynê Iraqê li bal FMI gihajtiye nêzîkî 117 milyar dolaran.
*(rudaw.net, 21.12.2017)*

**ÎTALYA**

***Alîkariya Kurdên Iraqê***

Îtalya alîkarî ji 200 malbatên Derbendîxanê, ku tê de erdhej bû bû, re şand. Konsula îtalî li Hewlêrê, Serena Moroni, daxuyand ku ewê ev alîkarî bajo (dewam bike).
*(rudaw.net, 22.12.2017)*

***Name ji serokwezîrê Kurdistana Iraqê re***

Serokwezîrê îtalî, Paolo Gentiloni, nameyek ji serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, re şand û tê de got ku ew hêvî dike ku dyalogek di navbera Hewlêr û Bexdadê de dest pê bike.
*(rudaw.net, 29.12.2017)*

**YÛNANISTAN**

***Jineke 110 salî dixwaze biçe Almanya***

Leyla Salih, jineke kurd ji Kobanî, Kurdistana Sûriyê, 110 salî ye. Ew dixwaze ku biçe Almanya, ji bo ku xwe bigihîne neviyên xwe. Ji Tirkiyê derbas bû û gihajt Yûnanistanê. Polîsê yûnanî ew ragirt. Nuha ew li vî welatî, li malekê, tevî 2 zarokên xwe, dimîne. Tê bawer kirin ku ewê karibe di 2019 de de, di 112 saliya xwe de, biçe Almanya.
*(avestakurd.net, 26.12.2017)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Pêşangeheke xwendekaran li Efrînê***

Wênekêş (ressam) Eslan Mamo pêşangehek li eywana mezzin a Zanîngeha Efrînê, bi navê "Rengên Efrînê", vekir. Tê de 145 tabloyên 25 xwendekarên wî, ku di salekê de hatin çêkirin, hene. Babetên (thèmes) wan sirûşta (tabîet) bêdeng, sirûşta ewlehiyê (emniyyet) û êş in. Wî got ku ev navenda bi navê "Eslan Art" her sal vê pêşangehê pêk tîne.

Ji dema borana (krîz) sûrî de, ev hunermend bi rêkûpêk (awakî muntazam) çalakiyan pêk tîne. Di du salan de, wî 100 xwendekar fêr kirin.

*(rudaw.net, 03.12.2017)*

***Fîlmek li Efrînê***

Komeke çalakvanên kurd li Efrînê fîlmeke rast (ne xeyalî) li ser borana (krîz) sûrî, bi navê erebî "El-Masîr" (Qeder), çêkir. Ew li eywana sînema, ya vî bajarî, hat nîşan dan. Ew çawa şoreşa sûrî baş dest pê kir, lê piştre, bi ketina bîrên (fikr) tund nav wê, têk çû dibêje.

*(rudaw.net, 09.12.2017)*

***Mamosteya pêşîn li Kurdistanê***

Nejah Suleyman mamoste ye, ji gundê Mîrkan, yê girêdayî Efrînê, ye. Berê 61 salan, di 1956 de, wê, weka jina yekemîn a mamoste li Kurdistana Sûriyê, dest bi karê xwe kiri bû.

*(rudaw.net, avestakurd.net, 13.12.2017)*

***Konsêrek ji bo zarokên kêmendam li Qamişlî***

Radyoyeke cihî (mehellî), One FM, konsêrek ji bo zarokên kêmendam (seqet) pêk anî. Koma Bermaya Çand û Hunera Suryanî, û stranbêjên cihê, beşdarî wê bûn. Rêxistinên zarokên kêmendam ên bajarên din, weka Amûdê û Dirbêsiyyê, jî beşdarî wê bûn. Dê û bav gelek dilxweş bûn.

Li Kurdistana Sûriyê, 10 rêxistinên piştgiriya van zarokan hene.

*(rudaw.net, 17.12.2017)*

***711 xwendekarên zanîngehê, bi 3 zimanan***

Di 2016 de, Birêvebiriya Xweser, ku Kurdistana Sûriyê bi rê ve dibe, li Qamişlî zanîngehek vekir. Tê de xwendin bi 3 zimanan, kurdî, erebî û ingilîzî, dibe. 7 beşên wê hene : wêje (edebiyat), zanîna (ilm) jinê, pêtrol, pêtro-şîmî, çandin, hunerên bedew û perwerde. Nuha, tê de 711 xwendekar û 127 mamoste hene.

*(rudaw.net, 21.12.2017)*

**TIRKIYE**

***Pêşangeha xaliyan li Ankara***

14mîn pêşangeha navneteweyî ya karên destî li Ankara bû û gelek kesan seredana wê kir. Kurdek ji Wanê, Halik Ertaş, tê de xaliyên Colemêrg (Hakkari) û Wanê raxistin.

120 şirket, ji 42 welatan, nemaze ji Rojhilata Navîn û Asya, beşdarî vê pêşangehê bûn. Ewê heta 20 Kanûn vekirî be.

*(rudaw.net, 04.12.2017)*

***Wergerandina pirtûkekê ji almanî bo kurdî***




Di 1956 de, Gunnar Ekelöf pirtûkeke bi navê "Mîrê Emgionê" nivîsî bû. Mêrxasê wê Kurdkeî êzdî, ku li Instanbulê gelek hati bû êşkence kirin, bû.

Dergevanên wî yên bîzansî ew kor kir û şand welatê dengbêjên kor.
Weşanxaneya kurdî Avesta ev pirtûk nuha wergerand kurdî û ew weşand.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

***Albumeke muzîkê li Istanbulê***
Diljen Ronî Kurdek ji Cizîrê ye. Wî xwendina xwe li Amedê (Diyarbekir) ajot (dewam kir) û nuha ew bijîjkiyê (tibb) li Istanbulê dixwîne. Wî du albumên stranên klassîk ên kurdî, "Çend Gotinên Evînê" û "Du Demsal", çêkirin.
*(rudaw.net, 31.12.2017)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***Navendek ji go kêmendaman li Wanê***
Li bajarokê Payîzava, yê girêdayî Wanê, navendek ji bo kêmendaman (seqet), bi navê "Navend ji bo Jiyaneke Bê Seqetbûn", hat vekirin. Bi alîkariya Birêvebiriya Perwerdeya Gel, 3 ateliyeyên sêramîk, dar û wêneyên li ser kevvir hatin vekirin. Bi ser de jî, fêrên muzîkê tên dayîn. Ev kêmendam bi mêtonên nuh tên lênêrîn.
*(rudaw.net, 05.12.2017)*

***Stranbêjeke jin alîkariya 250 zarokên Amedê dike***
***Di 16 Kanûn de***, stranbêja kurd Rojîn cill li ser 250 zarokan, li navenda çandî ya nuh a taxa Surê, li Amedê (Diyarbekir), belav kirin û bi wan re stira. Ev zarok qurbanên şerr in. Birêvebirê vê projeyê Kevin Noir e. Ew ji bavekî kurd (ji Dersîmê) û ji diyeke fransî ye.

Rojîn daxuyand ku piştî Sersalê, ewê şevekê li Almanya, ji bo qurbanên erdheja Kirmanşanê, ya li Kurdistana Îranê, pêk bîne.

Ji sedema qedexekirina hatûçûnê, ji sedema şerrê di navbera Yekîneyên Parastina Sîvîl (YPS) û dewleta tirkî de, nîvê rûniştevanên Surê jê çûn. Di nav 6 ji taxên wê de, 569 xanî, ku 334 ji wan dîrokî ne, hatin têk birin (xerab kirin). Li taxên Ali Paşa û Lalebegê, 806 ji wan ji aliyê desthilatên tirkî hatin têk birin, li gel riswakirinên (protêsto) rûniştevanan.
*(rudaw.net, 17.12.2017)*

***Pêşangeheke solan li Dîlokê (Antep)***
26mîn pêşangeha sol (pêlav) û şimmikan li Navenda Fwara Rojhilata Navîn, bi navê "Gap Shoes", hat pêk anîn û ewê 4 rojan bajo. 300 şirket û 800 marka beşdarî wê bûn. Ewê ev sol û şimmik bi taybetî ji Kurdistana Iraqê re werin şandin. 35.000 seredan tên pêşbînî (texmîn) kirin.
*(rudaw.net, 17.12.2017)*

***Konsêr li Colemêrgê (Hakkari)***
Şaredariya Colemergê şeveke çandî bi navê "Dîlana Çandê û Rengê Colemêrgê", li navenda çandî ya vê şaredariyê, pêk anî.

Li tenişta stranên kurdî û tirkî, stranên kevn, bi taybetî yên Colemêrgê, hatin stiran û dîlanên vê navçeyê hatin pêşkêş kirin.
*(rudaw.net, 30.12.2017)*

**KANADA**

***Fîlmek li ser şervanên jin ên kurd***
Hanna Bohman jineke kanadî ya 48 salî ye. Wê çend salan şerrê Dewleta Islamî, li tenişta jinên kurd "YPJ", kir. Dema ku vegeriya Kanada, wê fîlmek li ser van "YPJ" çêkir. Ev film 30 xulek (deqqe) dajo û derhênerê wê David Dargi ye.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 05.12.2017)*

**BELJIKA**

***Xelata navneteweyî ya baştirîn kurtefîlm***
Fîlma derhênerê kurd ê Tirkiyê Burhan Ateş, "Vîr" (bi zaravê zazakî. Bi kurmancî "Bîr"), Xelata Navneteweyî ya Baştirîn Kurtefîlm stend. Ew tê de bandora şerr li ser jiyana zarokan dibêje. Aktor tê de bi zaravê zazakî dipeyivin.
*(rudaw.net, 06.12.2017)*

**SWÎSRA Û EWROPA**

***Fîlmeke kurdî li eywanan***
Fîlma "Baxê Nîskê", ya fîlmçêkerê kurd ê Sûriyê, Xemgîn Salih, li eywanên sînema, li Swîsra û çend welatên Ewropa, hat nîşan dan.

Di destpêkê de, derhêner demekê li Libya jiya. Piştre ew çû Swîsra û tê de ji 25 salan de dijî. Wî, bi salan, karên cihê, weka li xwaringehan (rêstoran) û li bal berberan, kirin. Nuha, ew

xwediyê 3 xwaringehan û 14 salonên berberiyê ye. Bi dehan Kurdên Sûriyê li bal wî kar dikin.
*(rudaw.net, 07.12.2017)*

**KURDISTANA ÎRANÊ**



***Şkefteke dîrokî li Kirmanşanê***
Şkefteke dîrokî ya bi navê "Qorî Qela" li parêzgeha Kirmanşanê heye. Her sal, bi taybetî li Newrozê, bi hezaran geştyarên cihî û biyanî seredana wê dikin.

Li gora dîrokzanan, temenê vê şkeftê 65 milyon sal e. Ew li çiyayê Şaho, 15 km ji bajarê Riwanserê, li ser riya Riwanser û Pawe, ye. Dirêjbûna wê 12 km e û kûrahiya wê 1.140 m. e. Lê mafê geştyaran seredana bitenê 500 m. heye. Pileya (derece) germbûna wê di navbera 7 û 11° de ye. Tê de kaniyên av, ku kûrahiya hin ji wan 14 m. ye, hene. Ji banê wê perçeyên qeşa (bûz) tên xwarê. Dema ku meriv dest bide wan, dengekî weka muzîkê derdixînin.
*(rudaw.net, 08.12.2017)*

***6mîn fêstivala Merîwanê***
Ji 6 salan de, Fêstivala Folklorîk a Merîwanê ji aliyê Celalê Rewend tê pêk anîn. Muzîk, dîlan, stran, helbest, wêne (resm) û lizên kurdî tên pêşkêş kirin.
*(rudaw.net, 09.12.2017)*

**ALMANYA**

***Xelateke navneteweyî ji nivîskarekî re***
***Di 10 Kanûn 2017 de***, şaredarê Dortmundê xelata navneteweyî ya Nelly Sachs da nivîskar û romannivîsê kurd Bextiyar Elî.
Ev xelat her du salan ji kesahiyekê (şexsiyyet) re tê dayîn. Nelly Sachs ji Berlînê bû. Wê Xelata Nobêlê ya Wêjeyê (edebiyat) stendi bû û di 1966 de wefat kir.
*(rudaw.net, 20.12.2017)*

**KURDISTANA IRAQÊ**

***Vekirina Enstituyekê***
***Di 12 Kanûn de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, Enstitutuya Kargêriya Giştî, bi amadebûna balyozê (sefir) Korêya Başûr li Iraqê û jimareke wezîrên Kurdistanê, vekir.

Ewê ev enstitu karmendên dewletê bigihîne. Di 2005 de, ew rêxistineke ne hukûmî bû (NGO). Nuha, girêdayî wezareta planê ya Kurdistanê ye.

Li ser rola Korêya Başûr, Berzanî got ku di 2013 de, lihevkirineke ajansa KOICA bi vî welatî re hati bû wajo (imza) kirin û karmend hati bûn gihandin (perwerde kirin).
*(rudaw.net, 12.12.2017)*

***17 Kanûn: Roja Ala Kurdî***



***17 Kanûn*** Roja Ala Kurdî ye. Ew, bi merasîmên fermî (resmî), li ser hemî buroyan tê bi dar ve kirin (daleqandin). Ev al ji aliyê Ihsan Nûrî Paşa, di dema serhildana Agirî de, li Kurdistana Tirkiyê, di 1927-1930 de, hati bû bi kar anîn. Di 17 Kanûn

1945 de, ew li Mahabadê, li Kurdistana Îranê, ji aliyê serokê wê Qazî Muhammed hati bû bilind kirin.
*(rudaw.net, 17.12.2017)*

***2 rojên pişû (tatîl) li Noëlê***
Hukûmeta Kurdistanê daxuyand ku di cêjna Noëlê (Kerstmis, Christmas) de, ewê 24 û 25 Kanûn bibin rojên pişû (tatîlên fermî). Berdevkê wê, Sefîn Dizeyî, hemî filleyên Kurdistan û Iraqê bi vê cêjnê pîroz kirin.

Di 2003 de, li Kurdistanê nêzîkî 90.000 fille hebûn. Lê piştî têkçûna rewşa Iraqê, gelek ji wan çûn Kurdistanê û jimara wan li wê derê hilkişiya 160.000.
*(rudaw.net, 23 û 25.12.2017)*

**IRAQ Û SÛRIYE**

***2 pirtûk li ser jinên kurd ên êzdî***
Azad Berzencî û Ehmed Muhammed romana nivîskara iraqî Werd Bedr El-Salme, "Pakizeya Şingalê" ji erebî wergerand kurdî. Ewê di nêzîk de were weşandin. Ev pirtûk ji 600 rûpelan pêk tê û orîjînala wê ya erebî di 2016 de hati bû weşandin. Ew trajêdiya keçên cuhan ên êzdî, ku ji aliyê Dewleta Islamî hati bûn revandin, dibêje.

Ji berê, ji bo cara yekemîn, nivîskarê kurd ê Suriyê yê navdar, Selîm Berekat, romanek bi erebî li ser van jinên êzdî, bi navê "Sabaya Şingal" (Keçên Cuhan ên Şingalê), nivîsî bû.
*(rudaw.net, 13.12.2017)*

**BRÎTANYA MEZZIN**

***Rappor li ser sehên kurdî yên Sêwasê (Sivas)***
Rojnamevaneke rojnameya ingilîzî The Times rapporek li ser sehên (kûçik) Sêwasê, li Kurdistana Tirkiyê, ku bi navê "Kangal" hatine nasîn, nivîsî. Bilindbûna vî sehî 130 cm û dirêjbûna wî 1.70 cm e. Ew bi hevaltiya xwe ya mezzin bi mirovan re naskirî ye û keriyan li dijî guran diparêze. Loma, buhayê wî digihêje heta 7.000 yan 10.000 dolaran. Rojnameyên ingilîzî navê wî kiriye "Lion Dogs" (Sehên Şêr).
*(rudaw.net, 13.12.2017)*

**SWÊD**

***Kurdek li orkêstra Stokholmê***
Muzîkjen û stanbêjê kurd ê Sûriyê, Dilyar, ji 16 salan de li Stokholmê dijî. Ew ji aliyê orkêstra swêdî ya George Graham hat vexwendin ku bibe endamê wê. Wî got ku hunermendên swêdî ji muzîka kurdî gelek hez dikin.

Dilyar ji bo vê orkêstrê du stran çêkirin, "Kurdistan" û "Şehîd".
*(rudaw.net, 22.12.2017)*

**KATALONYA**

***Jineke faris bi kurdî distirê***
Yelda Persa stranbêjeke faris e û bi kurdî jî distirê. Wê bawernameya (dîplom) master, a rojnamevaniya gerrok, ji zanîngeha Barselona stendiye. Ji 2014 de, ew bi 5 zimana, ku kurdî jî tê de, distirê û li wê li Barselona komeke muzîkê, bi navê BCN World Music, ava kiriye.

Di 2009 de, Yelda çû bû Hewlêrê, Kurdistana Iraqê, tê de 3 sal ma bû û zimanê kurdî hîn bû bû. Ew dibêje ku ew dixwaze bibe balyoza (sefîr) dewlementiya ziman, çand û hunera kurdî. Û dibêje jî ku li Tehranê çend hevalên wê yên kurd, weka derhêner Behmen Qubadî û koma muzîkê Jêwar, hebûn.

Yelda çend helbestên helbestavanê kurd ê navdar Şêrko Bêkes wergerand zimanê ispanî û bi cillên kurdî li ser dikkê "défilé" kir.
*(rudaw.net, 27.12.2017)*

## OTRÎŞ (NÊMSA)

***Fîlmeke kurdî***

Can Bapîr derhênerekî kurd ji Kobanî, Kurdistana Sûriyê, ye û li Vyêna, li Otrîşê, dijî. Wî fîlmeke kurdî ya dramî, bi navê "Strana Şkestî", çêkir û tê de zoriya jiyana li Ewropa ji bo Kurdan dibêje. Film 40 xulek dajo û aktorên wê ji 4 perçeyên Kurdistanê, lê bi taybetî ji Kurdistana Sûriyê, ne. Piştî Otrîşê, derhêner dixwaze ku vê fîlmê li Almanya û welatên din ên ewropî nîşan bide.

*(rudaw.net, 30.12.2017)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 2.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Jona Mustafa bo hollandî û Chirine Gerits bo ingilîzî tê wergerandin. Montaja wê ji aliyê Jona Mustafa tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî. Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*






**Vlaamse Gemeenschapscommissie Brussel**